Bidestveanîna Mafên Netewî
Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal De

Hejmar: 168
7'Çiriya Pêşîn 2011
Buha: 150 Tûmen

# Agirî

Nawenda Vekolînên Stratejîk a PDK Îranê ava bû

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî

**BDP'ê dawî bi baykota xwe anî**

**YE û DYA keyfxweşiya xwe ji** helwesta BDP anîn ziman

R: 2

Beşar Esed(Qesab):

**Bi alîkariya Îranê emê li şeş seetan de agir** berdin deverê

R: 3

**Xalid Meşe'l dijî** helwesta Xamineyî sekinî

R: 6

## Di Îranê de Azadî heye!

## Helbet li serkut û îdamê de

Mehmûd Ehmedînejad, serkomarê rejîma Îranê tim di hevpeyvînên xwe de îşarebi azadî û demokrasiya di Îranê de dike, lê wekî xuya armanca wî ji azadiyê ev e ku di girtin, kuştin û îdamkirina xelkê de azadî heye.

Her li çarçoveya vê azadiya îdamê li Îranê de, şemendefira serkut û îdamê bi awayek xurt dimeşe û roja 4'ê Çiriya Pêşîn, girtiyê siyasî ê Kurd bi navê Ezîz Xakzade (29 salî) xelkê Selmasê li girtîgeha Kirmanê de hate bidarvekirin. Îdama navbirî li demekê de bû ku hukmê îdama wî hatibû betalkirin û bibû pênc sal girtîgeh û dûrxistina bo girtîgeha Kirmanê. Herweha heft hemwelatiyên din jî li Şîrazê de bi tometa qaçaxa madeyên hişber hatin îdamkirin.

Bi sedema zêdebûna hejmara girtiyan, Serokê Saziya girtîgehên Îranê ragehandiye ku ew dê pênc girtîgehên nû ji bo tawanbarên maddeyên hişber ava bikin. Navbirî ragehand ku ew 5 girtîgehên mezin li Tehran, Xurasana Rezewî, Sîstan û Belûçistan, Kirman û Îsfehanê tên avakirin.

Hêjayî basê ye ku rejîma Îranê gellek caran kesên siyasî û cudabîr jî li jêr navê tawanbarên maddeyên hişber digre û îdam dike, ku ev yek jî di çarçoveya azadiya îdamê de cih digre!.

**Axaftin li pêşberî** kursiyên vala!

Şehab Xalidî

Îsal jî weke salên pêşîn civîna salane ya Civata Giştî ya NY li bajarê Nîyoyorka Amerîkayê de dest...

R: 4

**Felestîn û durêya** serxwebûnê

Selîm Zencîrî

Pirsa Felestînê, yek ji pirsên herî sereke, aloz û dîrokî li Rojhilata Navîn de ye...

R: 6

Li gor rapirsiya nawendek Amerîkayî:

### Îran û Îraq welatên herî navxirab ên cîhanê ne

Di wê rapirsiyê de baweriya xelkê bi welatên cîhanê, li gorî kuwalîteya asta jiyanê, ewlehî û jîngeha wan hatiye nirxandin ku têde 42000 kesan beşdarî kirine, û li gor encamên bidesthatî, Kanada û swêd pileyên yekem û duyemîn ên welatên herî xweşnav ên cîhanê bidest xistine. Usturaliya, Swîs û Niyozlendê jî di wê rêzbendê de pileyên piştî wan wergirtine.

Di vê rapirsiyê de vebijêrkên wek bihêziya nîzama siyasî, demokrasî, şêweya jiyanê û pêgeha navnetewî ji pirsên din bûn ku li çarçoveya rapirsînê de hatibûn bicihkirin.

Li rapirsiya han de welatên Îran û Îraqê pileyên herî dawîn ên rêzbendê bidest xistin. Sedemek din jî ku karîger û bibandor bû derheq wan du welatan de, rêjeya zaf a gendelî û fesada abûrî bû.

### Hîlarî Kilîntonê binpêkirina mafê mirovan li Îranê ji aliyê rejîmê ve rexne kir

**Hîlarî Kilînton wezîra Karê Derve a Amerîkayê bi derkirina daxuyaniyekê tevî rexne kirina karbidestên rejîma Îranê seba tepeseriya xelkê welat û herweha binpêkirina berdewam ya mafê mirovan, ragehand ku rêbrên rejîma Îranê li gotin û kiryarên xwe de durû ne.**

Navbirî got serbarê axavtinên Xamineyî û Ehmedînijad derbarê parastina mafê mirovan û piştevaniya ji mafê azadiyê yê hemwelatiyan, lê rejîm berdewam e li ser tepeseriyên herî tund.

Hîlarî kilîntom herweha nîgeraniya xwe jî seba derkirina hukmê îdamê bo Yusif Nedirxanî, qeşeyê Îranî bi tawana Îrtidadê, eşkere kir .

Li daxuyaniya Hîlarî Kilîntonê de hatiye ku em girtina rojnemevan û sînemakaran bi tundî rexne dikin.

**5'ê Octoberê û awirek ji** rewşa mamostayan

Ceifer Mubeşirniya

Yek ji pirsên herî girîng ku cudahî tev hemû pirsên civakê heye û pêwîstî...

R: 8

**Rewşa xirab a** Îranê di warê seneta tûrîzmê

Sadiq Vehdanî

Hevdem li gel nêzîkbûn bi 27'ê Îlonê, roja cîhanî a Tûrîzmê, civata Abûrî...

R: 10

Hejmar 168, 7'ê Çiriya Pêşîn 2011

# PDK Îranê avakirina navneda vekolînên stratejîkî ragihand

:Bo raya giştî!

PDK Îranê avakirin û destbikarbûna navendek vekolînî li jêr navê "Navenda Vekolînên Stratejîkî a PDK Îranê" bo we hevwelatiyan radigihîne.

Navenda han binkeyek dibe bo xistneber bas û vekolînan li ser xalên stratejîkî ên civaka Kurdistanê û PDK Îranê. Ev navende ji aliyê PDK Îranê ve tê serperestîkirin.

Armanca vê navendê kar û xebat bo pêkanîna sermaye û çavkaniyek teorîkî a bihêz bo hewlên kiryarî û stratejîkî ên PDK Îranê li niha û desthilata Kurdî di pêşerojê de ye. Erkê belavkirina namîlke û çapemeniyên vê navendê dikeve ser milê PDK Îranê.




**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**

**Navenda Vekolînên Stratejîkî**

Birêveberên vê navendê raya giştî agehdar dikin ku di heftiya pêş de lînkek taybet bi vê navendê û herweha riya pêwendîgirtin bi birêveberên wê, li ser malpera navnedî a PDK Îranê "Kurdistanmedia.com" dê bihê vekirin.

## Sergotar

## Sê dehsal talan û dizî

**Selîm Zencîrî**

Eşkerebûna diziya vê carê a berpirsiyarên rejîmê(3000 mîlyardî), şibî erdhejekê sitûnên dîktatoriya Komara Îslamî hejand. Her çend ku carê asta zirarên siyasî û aborî ên wê nahên texmîn kirin, lê da xuya kirin ku fesada abûrî û dizîn û talana samanên giştî bi awayek sîstimatîk hemû aliyên nîzamê dagiritiye. Sîstem û hikûmetek ku serê sê dehsalan e sitûnên xwe li ser dizî, talan, girtin, kuştin, nifret, îdam, destdirêjî û ...hwd ava kiriye. Sîstemek ku bi xwîna xelkê firçik girtiye û bi mal û samana xelkê jî pêxorê dike.

Welatek ku ewqas dewlemende bi çavkaniyên binerd û li ser behra neftê ye, em dibînin ku xelkê wê li çi rewşekê de dijîn. Çiqas li bin hêla hejariyê de ne. Asta bêkarî, helawsana abûrî û ...hwd çawa hawar dike. Li hember de jî desthiltdar tenê li hizra tejî kirina berîkên xwe û malbatên xwe ne û bona parastina desthilata nerewa a xwe jî ji her riyên nerewa mifahê distînin. Bi wateyek din dîktatoriyek wiha fasid, dikare çi deskevtek bo xelkê xincî bextreşiyê bîne?

Nûçeya dizî a han raya giştî û seqaya siyasî a Îranê xistiye bin bandora xwe. Herweha bûye hêvênê teswiye hesabên siyasî ên navxweyî rejîmê, ji ber ku rayedar şibî guran ber bûne canê hev û gefa eşkere kirina fayl û dosyayên diziyan ji hevdu dixwen. Gefên Mustefa Pûr muhemedî, Serokê giştî ê rêxistina lêgerîna welat jî selmênerê vê rastiyê ne. Lê Xamineyî, serdesteyê cînayetkar û talançiyan dîsan hest bi metirsiyê kir û hişdarî da ragihandinan ku li dor vê mijarê, gelek pêre neçin, çunku li qazanc û berjewendiya nîzamê de nine.

Ger rikeberî û dijberî li ser talana zêdetir li navbera berpirsan de nebûya, kî/ê dikarî ji vê diziyê haydar bibe? Çima gava bi barhilgiran zêr û samana xelkê talan û ji welat derdixistin, deng ji tu kesî nedihat?

Fesada aborî li Îranê de meseleyek nine ku tenê li vê diziyê de bihê kurtkirin û ne jî yekemîn û ne jî ya dawîn dibe, çunku mêjdem e ku dezgehên navnetewî (Freedom house, Transparency Interanional) li raporên salane ên xwe de hişdariya wê çendê didin û navê rejîma Îranê weke sîstema herî fasid û gendel li rêzbendiyên xwe de tînin.

Bê şik eşkerebûna vê dizî û riswayî a malî, serbarê vê ku hitbara xelkê bi sîsetama bankî û îdarî a rejîmê ji dest dide, herweha rewatiya rejîmê jî zêdetir dibe jêr pirsiyarê. Jordeçûna buhaya zêr û borsê jî encama vê fesadê ye ku êdî xelik sermayeya xwe dikin zêr û xwe ji hesabên bankî diparêzin.

Bi giştî çarçoveya vê fesadê û zêdegaviyên berpirsan bi qasekê berfireh bûye ku êdî mecala veşartina wê, nemaze bal berpirsên rejîmê jî nemaye, lewma rejîm bi xurtkirina tund û tûjiyan li dijî xelkê û herweha bi teswiye hesabên siyasî ên berpirsan nikare xwe ji barê vê berpirsatiyê bidize û serencam vê bibe bela serê wê.

# Heyetek PDK Îranê seredana Mekteba Siyasî a PDK kir



Roja Duşemî, 26'ê Îlona 2011'an, heyetk PDK Îranê bi serperestiya Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî û hejmarek ji endamên Deftera Siyasî û Komîteya Navendî ên PDK Îranê, seredana Mekteba Siyasî a Partiya Demokrat a Kurdistanê kirin û ji aliyê heyetek Mekteba Siyasî a Partiyê ve bi serperestiya Fazil Mîranî, Sekreterê Mekteba Siyasî a PDK'ê ve bi germî hatin pêşwazîkirin.

Di destpêk de birêz Fazil Mîranî keyfxweşiya xwe ji seredana PDK Îranê nîşan da. Piştre di basek siyasî de nêrîn û boçûnên Partiya Demokrat a Kurdistanê derheq pirsên siyasî ên roj, rewşa deverê bi giştî û guhertinên ku bi Bihara Erebî tê naskirin, eşkere kir. Herweha rewşa Kurd, deverên sînorî û aloziyên vê dawiyê nirxand. Wî pêdagirî li ser siyaseta netewî a PDK kir û dostayetî tev hêzên siyasî ên Kurdistanî kir û pesna siyaseta dirost a PDK Îranê kir û nêrîn û helwestên wê di arasteya bizava rizgarîxwazî a Kurd de da zanîn.

Piştre Mistefa Hicrî basek siyasî li ser rewşa Rojhilata Navîn û ew kirîzên ku rejîma Îranê li asta navnetewî, deverî û navxweyî de pêre berbirû ye kir û li ser kirêzên navxweye rejîmê, bizava rizgarîxwaziya gelên Îranê, piroseya demokrasî û rewşa hêzên opozîsyûna Îranî û Kurdî sekinî. Herweha amaje bi sefera xwe a îsal bo dervey welat û akama hevdîtinên xwe tev dostên Kurd û tevgerên demokrasîxwaz ên Îranê kir.

Her di vî basî de siyaseta şerrxwazane a rejîma Komara Îslamî a Îranê û êrîşên wê bo ser sînorên Herêma Kurdistanê û awarekirina xelkê û jinavbirina sermiyana giştî a xelkê Herêma Kurdistanê mehkûm kir. Navhatî berdewamiya siyasetên PDK Îranê di hêla pilatformek hevkarî tev hêzên siyasî ên Îranê bi pêwîstiyek siyasî da zanîn û yekîtî û yekrêziya hemû aliyên siyasî ên Kurdistanî bo parastina destkevtên siyasî û netewî ên Kurdî li Başûrê Kurdistanê bi erkek netewî zanî.

Di dawiyê de birêz Fazil Mîranî car din sipasiya birêz Mistefa Hicrî û heyeta bi vî re kir bo vê seredana dostane û ragihand, Partiya Demokrat sipasiya PDK Îranê dike û li ser dostînî û pêwendiyên siyasî ên her du aliyan pêdagirî kir.

# BDP'ê dawî bi baykota xwe anî

Piştî ku BDP'ê biryara şikandina baykota li ser parlemana Turkiyê da , Amerîka û Yekîtiya Ewropayê ev yek bi gavek erênî dan zanîn.

Balyozê Amerîkayê li Enqarê û Komîsyûna Yekîtiya Ewroapayê, vegera BDP'ê bo perlemana Turkiyê bi karek pîroz zanîn. Di vê derheqê de, Balyozê Amerîkayê ragihand ku Amerîka keyfxweş dibe ku bi BDP'ê re xebatê bike.

Wî got ku ew vê mijarê ji nêzîk ve dişopînin û bi riya çekan tu encam bi dest nakevin û divê PKK'ê jî dev ji çekan berde. Herweha zêde kir, ger BDP jî di nava sîstemê de karê xwe bike, wê di nûkirina yasaya bingehîn a Turkiyê de bi bandor be û guhertina vê yasayê jî gavek erênî dibe ji bo demokrasiya Turkiyê.

Ji aliyê xwe ve jî Yekîtiya Ewropayê banga pêkanîna reforman di yasaya bingehîn a Turkiyê de kir.

Herweha diyar kir ku li Turkiyê, parliman navenda hemû biryar û hewlên bo reform û guhertinên yasayî ye ku ev jî bi beşdariya hemû aliyên siyasî pêk tê.

Ji ber vê, komîsyona Yekîtiya Ewropayê, bang ji hemû aliyên siyasî û saziyên sivîl dike ku bi lez dest bi guhertin û reformên pêwîst di yasaya bingehîn de bê kirin û divê ev guhertin û reform li gor pîvanên Yekîtiya Ewropayê bin.

# Rûsiya û Çînê biryarnameya dijî Sûriyê veto kirin

**"Beşarê Ray" Rêberê olî yê Mesîhiyên Maronî ên Lubnanê ragihandiye ku heke piştî têkçûna Beşar Esed Îxwanulmuslimîn bêne ser kar, wê demê jiyan wê ji bo Mesîhiyên wir gellekî dijwar be**

"Beşarê Ray" Rêberê olî yê Mesîhiyên Maronî ên Lubnanê di hevdîtina bi Sarkozî serkomarê Firansayê re, ragihand û got: Bi baweriya min û Klîsaya Vatîkanê, eger "Îxwanulmuslmîn" li Sûriyê bêne ser kar, wê bibe sedema gef û aloziyên pitir li ser rewşa jiyana mesîhiyên derdorê.

Ji aliyek din ve êrîşên hovane bi tankan li bajarê Restanê di çend rojên derbazbûyî de, bûye sedema kuştina bi dehan kes ji xelkê nerazî, û di heyamên sê rojan de 3 hezar kes ji xelkê bajarê Restanê bi sedema tijîbûna girtêgehan, di Sîloyên Sîmanê de hatine ragirtin.

Sûzan Rays, balyoza Amerîkayê di Saziya NY de, seba vê ku biryarnameya Konseya Ewlekariyê ji aliyê Çîn û Rusiyê ve hatiye veto kirin, nîgeraniya xwe eşkere kir û ragihand ku welatên navbirî, bona vê ku bikarin çek û teqemeniyan bifroşne rejîma Sûriyê, lewra ew biryarname vêto kirin, û got bila xelkê Sûriyê baş bizane ku kîjan welat piştevaniyê ji wan dike.

Hejmar 168, 7'ê Çiriya Pêşîn 2011

# Durûtiya Îranê li ser çarenûsa Filistînê



Ebdulla Hicab

Komara Îslamî ji roja ku hate ser kar heya îro bi duruşmên qaşo piştgîrî ji gelê Filistînê guhê cîhanê ker kiriye. Lê her dema ku çarenûsa gelê Filistînê û riyên çareserkirina pirsa Filistînê dikeve rojevê, Îran di rêza pêşîne wan welat û aliyan de ye ku li hember çareserkirina pirsa Filistînê diskeine.

Niha mijara serxwebûna Filistînê ketiye rojeva Rêkxistina Neteweyên Yekgirtî û çavên cîhanê dubare bi meraq li ser helwêsta Konseya Ewlekariyê ye ku biryara xwe ya dîrokî li ser daxwaza Deselata Xwesere Filistînê ji bo serxwebûna welatê wan bide. Dem pir hesas e û her helwêst an daxuyaniyek bandorê li ser pêvajoyê datîne. Lê dîsan Komara Îslamî zurneya dijberiya bi serxwebûna Filistînê re hildaye û dubare hevayekê cuda lê dixe.

Piştî axaftinên xeyalî û bê serûbine Ehmedînijad di civîna Civata Giştî ya Neteweyên Yekgirtî de, wê carê Xameneyî hêvî û daxwaziyên gelê Filistînê da ber xenceran û bi hêceta dijberiya li gel Îsraîlê mijara serxwebûna FIlistînê weke serokê Filistînê Mehmûd Ebas anî rojevê red kir.

Xameneyî bi hêceta hindê ku biryarek îhtîmalî ji aliyê Neteweyên Yekgirtî ve wê ji hebûna Îsraîlê re alîkar be, deselata Filistînê bi hindê sûçdar kir ku berjewendiyên gelê xwe naparêze û lewma daxwaza wan ji bo pejirandina serxwebûna welat jî ne di cî de dît. Lê wî tu basî hindê nekir ka gelo wê çawan bikare di rewşa niha de berjewendiyên gelê FIlistînê biparêze û ji êş u azara bindestiya wan re çi rêçareyê bi pêş bixe. Tenê mesaja ku di gotin û helwêstên Xameneyî de zelal xuya dikir, pilana wî ya şûm u şerxwaz ji bo gelê Filistîn û pêşeroja gelên Rojhilata Navîn bû, ji ber ku di axaftina wî de tenê mesaja şer û dijminkariyê xuya dikir.

Komara Îsalmî heya niha ji bo parastina berjewendiyên gelê Filistînê tu pêgav nerakiriye. Berevajiyê wê hindê hemû deman di rewşên hesas de û dema ku gelê Filistînê zêdetir pêwîstî bi piştgiri û alîkariya navneteweyî hebûye, Îranê xelkê sivîle wê heremê kiriye qurbaniyê stratêjiya xwe ya şerxwaz, û li ciyê ku alîkariya pêşxistina çareseriyê bide, hêvî û daxwazên xelkê Filistînê kiriye qurbanê berjewendiyên xwe yên îdeolojîk. Mînaka herî zelal ya dijminaiya Îranê bi berjewendiyê xelkê Filistînê re, dijberiya Îranê bi wê pêvajoyê re bû ku bi navê lihevhatina aştiya Oslo li navbera Îsraîl û Filistînê tê nas kirin.

Lihevhatina Oslo ku Tebaxa sala 1993'ê hate vajo kirin, pêgavek dîrokî bû ku riya diyalogê ji bo çareseriyê bi ser her du aliyan de vekir. Li gor wê peymanê Îsraîl û Rêkxistina Rizgarîdere Filistîn PLO hevudin bi fermî nas kirin. Bi wê pêgavê re ji bo cara yekê di asta navneteweyî de xwediyên dozê bi awayek fermî û di çarçoveya qanûnên navneteweyî de bi hev re ketin diyalogê heya çareyekê ji bo pirsgirêkê bibînin.

Lihevhatina Oslo, rê vekir ku serokê Filistîniyan, rehmetî Yasir Erefat xewna xwe ya salan weke rastiyek li ber çavên xwe bibîne û serkevtina ku di eniya şer de bi dest nexistibû, bi riyên siyasî bi dest bixe.

Erefat û rêkxistina wî bi serbilindî vegeriyan nava gelê xwe û pêvajoya ava kirina welatê xwe destpê kirin. Lê Komara Îslamî nexwest wê pêşketinê bipejirîne û her li destpêkê re li ser riya pêvajoya aştiyê asteng çê kirin. Di encama astengiyên ku rêjîma Îranê sebebkarê serekeye serhildana wan bû, dubare arêşe û nearamî vegeriya Filistînê û dijminahiya bi Îsraîlê re kete rojevê. Raketên Hizbullah û rêkxistinên tundajoye girêdayî Îranê dubare ewlekariya Îsraîlê xistin metirsiye û dîsan mijara şer û kuştinê kete rojevê. Gelê Filistînê ku hêvî dikir ji şer û aloziyan rizgar bibe, dubare kete ber hêrişan û di dawiyê de tûşî şerê navxweyî jî bû.

Lê di gel hemû astengiyan, roja 13'ê Adara sala 2002 gelê Filistînê destketek nû ya dîplomatîk bi dest xist û bû şahîdê hindê ku Konseya Ewlekariya NY prensîpa çareseriyê li ser bingeha avakirina 2 welatên serbixweye Îsraîl û Filistîn bipejirîne. Bi wê biryarê ve girêdayî, ji bo cara yekê serokkomarê Amerîka ragehand ku ev ji bo çareseriya arêşeya navbera Îsraîl û Filistînê riya herî maqûl ava kirina du dewletên serbixwe dibîne. Lê dîsan Îran ji çareseriyê re bû kelem û rê neda ku aramî vegere heremê heya dewleta Îsraîl û birêveberiya Filistînê bi riya dialogê pirsgirêkên xwe çareser bikin.

Helwêsta dijminkaraneya Îranê dubare bû hegerê vegeşîna tundutîjiyê. Hem eniya Rastrev li Îsraîlê û hem tundajoyên Filistînî ji helwêsta Îranê sûd girtin û alozî hê zêdetir kirin. Di dawiyê de rewş wisan tevlihev bû ku metirisiya şerek mezine herêmî kete rojevê û şer û tundutîjiyê bal kişande ser pêwendiyên navbera Îsraîl û Filistînê.

Di encama şer û aloziyan de bi sedan kes bûne qurbanî u riya çareseriyê ber bi tûnelek teng u tarî ve çû. Lê her çawan be, siyasetvanên xwedî berpirsyariye Filistînî riya diyaloge bernedan û di meydana dîpolmasiyê de ji xwe re li hevpeymanên nû geriyan. Pêgava wê dawiyê ya Mehmûd Ebbasê serokê Filistînê ku daxwaza serbixweyiya welatê xwe bire civîna Civata Giştî ya Neteweyên Yekgirtî encama wê riya ber bi aqilane bû. Lê dîsan xuya ye ku Komara Îslamî wê astengiyan derxe û kelema bîne ser riya daxwaziyên rewaye gelê Filistînê.

Komara Îslamî bi helwêstên xwe yên derveyî eqlaniyetê û bi tundajoyiya ji sinûr bi der, Rojhilata Navîn ber bi çarenûsek reş ve dibe. Helwêst û siyaseta Îranê li ser çarenûsa Filistînê ne li gor berjewendiyê gelên Îranê ye û ne jî barekê li ser milê xelkê Filistînê sivik dike. Komara Îslamî bi wan helwêstan tenê dixwaze manovrek siyasî û propagendeyê bike heya zêdetir zemîneya pêşvebirina îdeolojiya zêdexwaze xwe xweş bike. Ne ev manovir û ne jî siyaseta Îranê bi kêrî Rojhilata Navîn tên. Ew siyaset tenê dikare rê ji bo tirajêdiyên hê mezintir veke.

Riya ber bi aqilane ji bo çareserkirina pirsa Filistînê vejiyandina wan pîvanan e ku her du aliyan li sala 1993 li Oslo pejirandin û li ser wan lihev kirin. Ji ber ku ne zeyîfbûn û zerergîhandina Îsraîlê bi xêra Filistînê û li ser qazanca gelê Filistînê ye û ne jî ji hev belav bûn û binpê kirina mafên Filistîniyan tu qazancê digeîne Îsraîlê. Weke rastiya heyî, her du gelên Filistîn û Îsraîl pêwîste li hevudin xwedî derkevin û berjewendiyên hevudin biparêzin. Di pêşerojê de her ew du gelin ku wê pêwîst bibînin bi hev re di nava aştî û cîranetiyek tena de bijîn.

Weke çawan ku di rojên tengawiyê de Komara Îslamî tu xêr neda gelê Filistînê û ji çareser kirina pirsa Filistînê re tu alîkarî nekir, wê sibe rojê jî tu xêra wê rêjîmê ji bo Filistîniyan nebe. Îdeolojî û pilanên wê rêjîmê ji bo pêşeroja gelên Rojhilata Navîn bi tenê rojreşî û arêşeyê tîne.





## Beşar Esed(Qesab): Bi alîkariya rejîma Îranê emê li şeş seetan de agir berdin Rojhilata Navîn

**Berpirsyarek payebilin ê Ereb ragehand ku wî hinek ji hurdekariyên hevdîtina Davûdoxlo û Beşar Esed serkomarê Sûriyê bilav kirine ku ya du mehaên berî niha ye.**

Li gorî nûçegihaniya "Enexîl" ya Îraqê vî berpirsyarî ragehand ku Beşar Esed gellek aram û serhemdê xwe gote heyeta Turkiyê ku we ne peyama Turkiyê belkû ya Amerîkayê ji me re aniye, lewra bêje wan ku peyama me ew e ku heke har ûrîşek bo ser me pêk were, bi alîkariya Îranê emê derbên giran li we bixin.




Wî rû li Davûd Oxlo jê pirs kir ku gelo wê hûn dizanin çima hêzên Rojavayî tecrubeya Lîbiyê li Sûriyê de taqî nakin? Dema ku bersiva xwe wernegirt gote Davûd Oxlo ku emê bi alîkariya Îranê agir berdin Rojhilata Navîn bi awayekê ku li nêzîk hewzeyên neftî wê şer û kêşeyek weha pêk bê ku tewaya tengeyên avî jî bêne daxistin.

Her weha emê bi sedan muşekî havêjne Tilawîvê û Hemasê berdin canê Îsraîlê û derbên weha lî Îsraîlê bixin ku qet dezgehên Îtilaatî ên Îsraîlê bawer jî nekiribin.

Wî herweha got ku me li rûxandina rejîma Sedam de alîkariya Amerîkayê kir û heke Amerîka bixwaze bi me re şer bike, em dikarin derbên giran li Îraqê de li leşkerên Amerîkayî bixin.

Piştî wan gotinan Davûdoxlo Sûriyê bi cih dihêle û vê peyamê ji serkomarê Tırkıyê re dibe.

# Axaftin li pêşberî kursiyên vala!



Şehab Xalidî

Îsal jî weke salên pêşîn civîna salane ya Civata Giştî ya NY li bajarê Nîyoyorka Amerîkayê de dest pêkir û nûnerên welatên endam di NY de li asta serkomarên welatan û wezîrên karûbarê derve ê welatan, têde beşdarî kirin û li ser pirsên herî giring ên di rojevê de û ên ku pêwendî bi welatên wan bixwe ve hebû axivîn.

Serkomarê rejîma Îranê jî ku bona beşdariya di vê civîna salane de hatibû Amerîkayê, gelek nûçegihanan xwe gihandin wî da ku hevpeyvînan pêre pêk bînin, ku hemû nûçegihanek di vê hewla xwe de serkevtî nebûn, jiber ku Ehmedînijad tenê bi wan nûçegihanan re amade dibe hevpeyvînan pêk bîne ku li ser pirsên xwe gellek pêdagiriyê nakin.

Wî di hevpeyvîneke xwe ya bi kanala ABC'ê re, di bersiva pirsekê derbarê Musewî û Kerubî de got ku her du jî serbest in û mijûlî jiyana xwe ya rojane ne. Ew vir û direva wî ya mezin di demekê de bû ku her du jî li mla xwe de girtî ne û li jêr çavdêriya herî tund de ne. Wî her weha bi baweriyek xurt ragehand ku mafê mirovan li Îranî de gellek baş tê parastin!.

Lê di Civata Giştî ya NY de, Ehmedînijad wek sala pêşîn dîsan jî, gellek cesûrane û bê tirs ji kursiyên vala! dest bi axavtinên xwe ên dubare û çendbare ên derbarê bi gumanbûna ji bûyera 11'ê Septamberê û herweha "mudiriyeta cîhanî" û rewanebûna Konseya Ewlekariyê û Şerê li Îraq û Efxanistanê de kirin. Helbet renge sedema vê ku kursî vala bûn ew nebû ku beşdarên civînê nexwazin rêz ji Ehmedînijad bigrin, belkû sedema bingehîn ew bû ku nûnerên beşdar di vê civînê de dizanîn ku Ehmedînijad di ciyê daxwaza hewkariyê ji welatan, bo alîkariya maddî bi zarokên Îranî ên hejar re ku ji destê ferq û cudahiyan, û bê edaletiya dewleta wî de êş û azarê dikşînin, wê dest bi bêhurmetiya bi welatan û tawanbarkirina wan bike, wek evê ku Obama û Netanyaho zarokên Îranî xistibin vê rewşê de!.

Ehmedînijad di destpêka axaftina xwe de pêdagirî kir ku armancên mezin ên mirovî wek azadî û azadîxwazî, retkirina zulmê û piştevaniya ji zulimlêkiriyan û edaletxwazî û dadperewerî, gellek dûrî rewşa cîhanê ya heyî ne. Wî got ku xelk bi tewahî ji rewşa heyî, ji şer, kuştar, hejarî, kirîza abûrî û siyasî, bêhurmet û sivikatî, ferq û cudahî û binpêkirina mefê neteweyan nerazî ne.

Ehmedînijad di demekê de bas ji dadperweriyê dike ku niha li serdemê serkomariya wî de li her serdemekê zêdetir mafê mirovan tê binpêkirin û dadperwerî dibe goriyê qazanc û berjewendiyên deshilatdaran. Ew di demekê de bas j dadperweriyê dike ku birayê wî û heya kesên ser bi bi baskê wî, bi eşkere dibêjin ku Ehmedînijad û ên derdora wî gendel in.

Renge bi raya Ehmedînijad daperwerî eva be ku serbarê vê ku Îran xwediyê dahatek bê qas ya netewî ye, û sebarê vê ku di qonaxekê de, nirxa her bermîlek neftê ji 140 dolarî derbaz bû jî, lê bi milyonan xelkê Îranê li jêr hêla hejariyê de dijîn, û gellek kes bona vê ku bikarin jiyanê bikin neçar dibin gorçikek xwe bifroşe. Bê guman dadperwerî li Îranê de li her welatekî din zêdetir e, jiberku di demekê de ku kesek bona rizgarbûna ji mirinê gorçikek xwe difroşe, lê ji aliyek din ve diziyek sê hezar milyard tumenî eşkere dibe ku destê berpirsyarên payebilind jî têde heye, belê Ehmedînijad eva ye dadperweriya ku serê te li nav beşdarên di Civata Giştî de bilind kiriye, helbet li hember kursiyên vala de!.

Wî herweha qala şerê li Efxanistan û Îraqê de kir û got ku kîjan welat bû ku bi hêceta 11'ê Septamberê êrîşî ser wan welatan kir?

Bê guman Ehmedînijad dixwaze bi bas kirina ji wan mijaran wate 11'ê Septamberê û şerê yekem û duyemîn ê cîhanî bîr û raya giştî bixapîne, û bala wan ji mijarên girêdayî bi binpêkirina mafê mirovan di Îranê de bikêşe bo aliyê wan pirs û mijarên ku dema wan derbaz bûye. Lewra divêt nûçegihan û bîrûraya giştî di dema pirsên ji Ehmedînijad de gellek zîrek û pêdagir bin li ser pirsên ku Ehmedînijad naxwaze bersiv bide.

Wî her wehe got ku eva navenda mudîriyeta cîhanî ye ku di navbera exlaq û jiyana civakî ya xelkê de valahî çê kiriye. Wî got kîjan in ku bona rijandina çendîn ton bombeyan bo ser serê neteweyan amadeyî hene lê amade nînin ku bi hewara xelkê Somaliyê de herin?

Ehmedî nijad di demekê de bas ji mudiriyeta cîhanî dike ku bixwe nikare heta mudiriyeta civaka Îranê jî bike, û di serdemê deshilatdariya wî de li her serdemekê pitir Îran bê heval û dost maye û heta di navxwe a welat de ew hijmara kêm ku dengê xwe danê jî, êdî wî û derdora wî rexne dikin û navê "aliyê lader" (Cereyana Înhirafî) danîne ser , gelo ew dixwaze bi vî awayî mudîriyeta cîhanî bike?

Li jêr sîbera mudîriyeta Ehmedînijad de hinde nemaye ku li encama hişikbûna gola Urmiyê de, mezintirîn karesata jîngehî ku karnas wek sonamiya xwê binav dikin rû bide, gelo ew dixwaze bi vî awayî cîhanekê birêve bibe!?

Wî bas ji vê hindê kir ku niha piştî dagîrkirina Efxanistanê ji aliyên Nato ve berhemanîna maddeyên bê hişker çend hember bûye.

Eva ku berhemanîna madeyên hişber piştî êrşên Natoyê çend hember bûye girêdayî bi rewşa wî welatî wate Efxanistanê ve heye, lê Ehmedînijad ku dirûşma xebta bi dijî madeyên hişber hil giritiye bi tewaya hêz û şiyana xwe ji riya karbidestên dewletî bixwe ve, bona bê îrade kirina ciwanên welat û dûrxistina wan ji jiyana normal û dûrkirina wan ji siyasetê, ton ton vê mewadê tînin jor bi awayekî ku niha êdî zarokên kêmtir ji 15 salî jî gelek hêsanî dikarin maddeyên hişber bi dest bixin, ku di zanîngehên ciyê hînbûna zanistê de jî bi rehetî dest dikeve û kur û keçên xwendekar jî bi kar tînin. Belê eva ye ev exlaqa ku Ehmedînijad bas dike, ku bê guman li Îranê de wateya xwe bi sedema wan siyasetan ji dest daye.

Ehmedî nijad di daviya axavtina xwe de got ku "neteweya mezin û şaristanîsaz" ya îranê amade ye ku li rastaya binbirkirina zulmê û guherînkariyên azadîxwazane destê neteweyên din bigre.

Helbet bas ji vê nekir ku xelkê Îranê bixwe zêdetir ji sî sal e ku ji destê rejîma de êxsîr in û ji bo azadî û demokrasiyê xwînê didin û seba wan daxwaziyên xwe bi awayên herî hovane ji aliyê rejîma dadperwer ya Ehmedînijad ve tên îşkence û îdamkirin. Her di wan çend salên piştî serkomariya Ehmedînijad de bi sedan hezar kes seba vê ku Ehmedînijad bi riya dexelkarîyan ve bûye serkomar hatine ser şeqaman û dengê nerizayetiya xwe bilind kirin, lê Ehmedînijadê dadperwer ku dixwaze mudiriyeta cîhanî bike bi gulleyan bersiva wan da û ên ku hatn girtin jî di girtîgeha Kehrîzekê de bi awayên herî hovane hatin îşkencekirin û heta ketin ber destdirêjiya cînsî jî.

Gelo Ehmednijad bi vî awayî dixwaze hevkariya neteweyên jêr dest bike? Renge armanca wî ji netewyên jêr dest hemen xelkê nerazî ê Sûriyê be ku elheq Ehmedînijad bi başî hewkariya wan kir û hevalên besîcî şandin vir da ku destê dostatiyê bo aliyê wan dirêj bikin!.

Bê guman rejîma ku îro Ehmedînijad serkomariya wê dike niha êdî heya di nav welatên Îslamî de jî, giranî û hitbara xwe ji dest daye û nayê hezkirin û xelkê belengaz ê Îranê ku serdemekê xwediyê giraniyek zaf û hezkirinek bê hempa di asta welatên heta ne îslamî de jî bûn û hêjayî serkomarek jêhatî ne, îro rojê ketine mezintirîn girtîgehekê de ku navê wê Îran e û ew girtîgeh jî tu kesî ava nekiriye ji bilî Ehmedînijad û erbabên wî. Êdî bi hêviya vê rojê ku xelkê Îranê bikarin li rwşek tewaw azad û demokratîk de serkomarê xwe bi dilê xwe hilbijêrin û ji destê Ehmedînijad û Meşayî û ... rizgar bin û ji vê hindê zêdetir li hember neteweyên din de seba vê ku kesek wek Ehmedînijad serkomarê wan e, şermezar nebin.



# Hikûmeta Sûriyê di navbera man û hilweşandinê de



Azad Kurdî

Serhildanên Sûriyê yên li dijî rejîma Beşar Esed 6 meh li pey xwe hiştin û ket nav meha heftan. Lê hêj kirîza siyasî li Sûriyê nehatiye çareserkirin û hêzên ewlekarî û leşkerî yên hikûmeta Sûriyê li ser qirkirina xelkê nerazî berdewam in.

Serkutkirina xwepêşanderên aştîxwaz ên Sûriyê ji aliyê hêzên dewletê ve gihaye astekê ku mirov dikare bêje tevgerên hikûmetê dijî xelkê nerazî yê sivîl tawanên dijî mirovayetiyê ne. Herçiqas statîstîkek serrast derbarê rêjeya kuştî, birîndar û girtiyan di encama nerazîbûnên sivîl de li Sûriyê nayê zanîn, lê li gor raporên Neteweyên Yekbûyî, Navenda Tomarkirina Binpêkirinan li Sûriyê û Rêxistina Çavdêriya Mafê Mirovan a Sûriyê ya li Londonê û çendîn saziyên din ên biyanî û sûrî ku rewşa mafê mirovan li Sûriyê dişopînin, ji destpêka xwepêşandanan ku ji 15'ê Adara 2011'an destpêk kiriye û heta niha berdewam in û şeş meh li pey xwe hiştin, nêzîk 3 hezar hevwelatî hatine kuştin, di nav kuştiyan de nêzîk 300 zarok û jin jî hene.

Herwiha komeleyên han diyar dikin ku nêzîk 10 hezar xwenîşanderên aştîxwaz ji aliyê hêzên ewlekariyêa Sûriyê ve hatine girtin û heta niha nêzîk 250 kes di bin îşkenceyan de hatine kuştin. Hezaran mirov jî koçber bûne, bi taybet bo Tirkiyê.

Serhildanên ku bihara îsal di gelek welatên Erebî de hatin destpêkirin û rojev hejand, bû sedema hilweşandina çend hikûmetên dîktator di herêmê de, lê ev çend meh in çalakiyên xelkê sivîl li Lîbya û Sûriyê li dijî rejîmên desthilatdar dimeşin, hevwelatî berdewam tên qirkirin, lê hikûmet hêj nehatine hilweşandin.

Sedemek sereke ev e ku desthiladarên dîktator ên Rojhilata Navîn ji ber ku sîstemên xwe li ser bingeheke ne demokratîk ava kirine û îradeya xwe ji gel nastînin, rewş û atmosferên bi tevahî leşkerî û ewlekarî afirandine û welat pê rêve dibin. Rewşa han bûye sedem êdî sebra xelkê têhniyê azadî û demokrasiyê bidawî bê û biryar wergirtin ger bi dana bedel û nirxên gelek mezin jî be, xwe ji belaya dîktatorên desthilatdar li ser welatê xwe rizgar bibin. Di hember de, rejîmên wek Qezafî, Beşar Esed û Komara Îslamî modelên wek hev bo kontrolkirina nerazîbûnên navxweyî hene. Budceya herî zêde ya wan welatan bo karûbarê leşkerî û ewlekariyê hatiye terxankirin, lê di welatên demokratîk de rêjeya budceya leşkerî û ewlekarî ji sedî 10 kêmtir e. Vê yekê destê rejîmên dîktator bo qirkirina çalakî û tevgerên xwepêşanderên dijî wan dewletan vekirî hiştiye. Nimûna berçav em niha di Lîbya û Sûriyê dibînin.

Ligel ku li Sûriyê tawanên dijî mirovayetiyê li dijî hevwelatiyên sivîl tên meşandin, hêj Neteweyên Yekgirtî ceza û ambargoyên bi bandor nexistine ser rejîma Esed da ku dawî li bikaranîna zilm û tundûtûjiyê dijî xwepêşanderên aştîxwaz li seranserî Sûriyê bê anîn. Pêwîst e di rewşên wiha de raya giştî ya navneteweyî li hevwelatiyên nerazî û aştîxwaz xwedî derkeve û piştgiriyê bikin û bi tevgerên xwe pêşiya qirkirina wan bigrin. Lê lawazbûna tedbîrên dîplomatîk û ferzkirin û berçavgirtina berjewendiyên aborî li serveyî pirensîpên mirovî û mafê mirovan ji aliyê hindek welatên wek Çîn û Rûsiya bûye sedem ku NY nekare derbarê tevgerên rejîma Sûriyê tu helwêstek cidî werbigre. Bi giştî reaksyonek navnetewî ya yekdengî li dijî Hikûmeta Sûriyê qels in û heta niha bersivder nebûye.

Ev rewş û pêvajo dibe sedem ku dewletên serkutker li ser kiryar û tevgerên xwe yên şîdetê li dijî xwepêşanderên nerazî zêde bi îsrar bin û tu tirsek wan li hemberê raya giştî ya navneteweyî nebe. Me dît ku hefteya borî, ligel ku Yekîtiya Welatên Ereb daxwaz ji Şamê kirin ku serkutkirina li welatê xwe rawestîne û dest bi diyaloga nîştîmanî bike, lê hikûmeta Sûriyê heta daxwaza YWE ya ji bo rawestandina serkutkirina neyaran jî red kir. Şîdet û qirkirin her dimeşe. Ji ber ku çarçoveya sîstemên dîktator ên herêmê bi awayekê hatiye darêtin ku nikarin reforman bipejirînin, ji xeynî ku bi xwepêşandanên sivîl ên hevwelatiyan yan derbeyên leşkerî nebe nayên hilweşandin û guhertin.

Welatên herêmê jî her yek li gor berjewendiyên xwe yên netewî ligel pirsa Sûriyê tevdigere. Ji hemûyan nîgernatir Komara Îslamî ya Îranê ye ku hilweşandina hikûmeta Beşar Esed dibe sedema jidestçûna bingeheke xurt a wan di devera Rojhilata Navîn de û têkçûna hevalbendek mezin ê rejîma Îranê. Tedbîr û tevgerên Tirkiyê ne bi dilê rayedarên Komara Îslamî ye û berdewam dîplomasiya Tirkiyê rexne dikin derbarê Sûriyê, ji ber ku bi nigeranî rewşa Sûriyê dişopînin. Tirkiye jî bi îsrar e bo dawîanîn li desthilatdariya Bees a Beşar Esed li Sûriyê.

Pirsgirêkek din ku alîkar e ji bo berdewabûna desthilatdariya rejîma Sûriyê, nebûna opozîsyonek xurt, yekgirtî û hevaheng e li Sûriyê. Di nav opozîsyona Sûriyê de kesayetiyên neteweyî yên Ereb, Kurd, Îslamî û Sekuler cîh digirin. Herçiqas di şeş mehên borî de dehan civîn li Tirkiyê pêk anîne, lê heta niha opozîsyona Sûriyê negihîştiye lihevhatinekê derbarê projeyek hevbeş ji bo rêvebirina sîstema piştî hilweşandina rejîma Beşar Esed.

Di vê rewşa hestyar de ku Sûriye tê de derbas dibe, nakokiyên navbera endam û hêzên opozîsyona Sûriyê zêde berçav in. Konseya Netewî ya Sûriyê ku vê hefteyê li Stenbolê pêk hat, dixwaze hevahengî û yektiyê bixe navbera hemû endam û aliyên sereke yên opozîsyonê û ji bo avakirina Sûriyeyek demokratîk û nû ji bo hemû pêkhateyên Sûriyê bikeve nav hewildan û tevgeran. Lê nakokî û ne tebahî hêj di helwêst û daxuyaniyên hêz û aliyên opozîsyonê tê xuyakirin.

Herçiqas ligel derbasbûna demê rêjeya beşdariya Kurdan di nav serhildan û şoreşên girseyî li Sûriyê zêde dibe, lê hemû çavdêrên siyasî wisa texmîn û çaverê dikirin, ji destpêka serhildanên Sûriyê ku ji 15'ê Adarê ve hatin destpêkirin, Kurdên Rojavayê Kurdistanê berî her kesî li dijî rêjîma Beşar Esad tevlî şoreşa gelê Sûriyê bibin, lê ligel ku heya niha tevî berdewamiya xwepêşandanên ciwan û hinek partiyên kurdî, hê jî xwepêşandanên girseyî û seranserî li deverên Kurdan bi awayek berfireh çênebûne.

Vêna nîşan dide ku hêj tevgera Kurdî di warê rêxistina gel de bi awayê pêdivî kar nekiriye yan hevdengî û hevahengiya pêwîst nayê kirin bo beşdarîkirina Kurdan di xwepêşandanan û gotûbêjkirin ligel aliyên opozîsyona seranserî ya Sûriyê.

Erkê endam û hêzên opozîsyonê ye ku di rewşên wilo de ku rûbirûyê welatên wan dibe, yekîtiya xwe bihêz bikin û li ser projeyek reforman bo sîstema dahatû ya welat li hev bikin û bi vê yekê hêz, bawerî û hêviyê bidin xwepêşanderên sivîl û aştîxwaz ku bi awayek bi xwîn tên serkutkirin.



# Felestîn û durêya serxwebûnê



Selîm Zencîrî

Pirsa Felestînê, yek ji pirsên herî sereke, aloz û dîrokî li rojhilata navîn de ye. Pirsek ku bo hin ji sîstem û desthilatan bûye bi serêşiyek mezin, berevaj bo hinên din jî bûye bi pêxor û xoreka piropagandayî û bi desttêwerdan û piştgiriyên rûyekî ên xwe û rijandina rondikên têmsahî berjewendiyên xwe dişopînin û bûne sebebê temendirêjî û kûrtir bûna pirsa Felestînê.

Vê pirsa rewa, heya niha nirx û bedelên zaf standine û serbarê wê ku gavên zaf bona çareserkirina wê hatine avêtin, lê hêj negihîştiye encamek dilxwaz. Bi taybetî ku li vê pêxemê de gelek rêketin û peymanên aştî û got û bêjan li navbera aliyên pêwendîdar ên pirsê de hatine wajo kirin. Girîngtirînê wan jî rêketinnameya Uslo (1993)'ê bû ku piştî borîna 18 salan bi ser de, gihîşt binbestê û bêencam ma.

Gava desthilatdarên felestînî dîtin ku ji wan got û bêj û rêketinan tiştek şîn nabe û tenê zeman derbas dibe, civîna îsal ya NY bi derfet zanîn ku hawar û gaziya xwe serbarê zext û givaş û gefên Amerîka û Îsraîlê bigehînin guhê cîhaniyan. Eva bû ku me dît Mehmûd Ebas, serokê desthilata xwebirêveber a Felestînê li hemberî wan hemû givaşên siyasî de berxwe da û li 23'ê Îlonê de daxwazînameya Felestîniyan ji bo azadî û serxwebûnê li hember vê civatê de pêşkêşî serokê rêxistina NY kir.

Wî bi rojev kirina vê pirsê, li rastî de top xiste nav qada Îsarîl û Amerîka û civaka cîhanî. Axaftina atifî û dîrokî a Mehmûd Ebas li civata giştî de bûye mijara sereke a medyayan û serbarê wê ku bala raya giştî a cîhanê zêdetir kişande ser vê pirsgirêkê, herweha bi pêşwaziya germ û girseyî a nûnerên zorahiya welatên amade li civatê de jî ber bi rû bû.

Piştî wê, Ban Kî Mûn ew daxwaz radestî Konseya Ewlekar a NY kir daku vê meseleyê binirxînin û rêçareyekê jêre bibînin. Şêwra Ewlekar li yekemîn gava karê xwe de, daxwazîname ji bo komîteya pêregihîştin bi wergirtina endamên nû ku ji 15 endamên ne dayîm ên Şêvrê pêk tê, şand û renge ew piroseye û encamên wê heya çend heftiyan vekêşe. Pêka yasaya vê rêxistinê divêt cara yekemîn ew daxwazî erêya 9 ji 15 endaman misoger bike, dûre dê welatên 5+1 biryara xwe bi her encamekê li ser bide. Li gava dawîn de dîsan dê bikewe ber dengdana 193 endamên rêxistina NY , ku divê li wir jî 2 ji 3'ê a dengan bidest bîne.

Li vê derheqê de heya niha nizîk bi 130 endaman soza erêkirinê dayne desthilatdarên Felestînê. Lê çavdêrên siyasî li ser vê baweriyê ne ku madam Amerîka li dij e û dixwaze Veto bike, ew piroje mehkûm bi şikestê ye û ser nagire.

Ya girîng eve ku Mehmûd Ebas ew barê giran li ser milê xwe hilda û ger ew daxwazî bi cî jî nehê, li gelek aliyên din ve li berjewendiya wî, rêxistina wî û desthilata Utonom a Felestînê de ye. Wate Ebû Mazin bi tîrekê du nîşan hingavtin. Him rikeberê xwe ê siyasî li Felestînê de xiste perawêzê û bire bin sîbera xwe. Bi awayek din manorên siyasî û bizavên dîplomatîk ji dest Hemasê bona givaşxistine ser xwe (Feth)ê derxist. Him jî meşrûiyet da xwe û desthilata xwe û da selmandin ku nûnerê rastîn ê gelê Felestînê ne. Ji hêla din ve jî taw û lerz xiste nav dilê Amerîka û Îsraîlê û ew xistin nav biryardayîn û durêyek dijwar.

Wî bi vê cesareta xwe ya siyasî, super hêza herî mezin a cîhanê kire şirîkê nirxdayîna xwe û rastî têçûyek zaf kir. Lewma Amerîka niha li rewşek dijwar de ye û nizane ka çawan xwe ji vê pirsa hesas rizgar bike. Ji ber ku çi qebûl bike û çi jî Veto bike her zirarê dike. Çunku Serokkomarê Amerîkayê, Barak Obama li teblîxatên hilbijartina xwe de aştiya li rojhilata navîn û avabûna welatê Felestînê li rex Îsraîlê weke bingeha siyaseta derve a xwe ragihand û paşan jî li axaftina xwe ya sala 2009'an li Qahîreyê û herweha ya sala borî jî li civata NY de soza avakirina dewleta Felestînî li 2011'an de da Felestîniyan, lê nekarî vê soza xwe bicî bîne.

Bi wateyek din ew bûye êxsîrê soz û peymanên xwe. Niha jî berevajî sozên xwe gefa bikaranîna mafê Veto'yê dixwe û dixwaze çirayê bextê xwe û Amerîkayê bitemirîne. Obama dibêje ku felestînî divêt ji riya got û bêjan ve bigihîjin bi aştiya li gel Îsraîlê, ne bi biryarnameyan.

Amerîka yekem welatê cîhanê bû ku 64 salan berî niha Îsarîl bi fermî nasî, niha jî mezintirîn dijber û astengê pêşberî serxwebûna Felestîniyan e. Helbet renge beşek ji vê gefa Veto'yê, pêwendî bi hilbijartinên pêşber ên Amerîkayê ve hebe. Lê ji derveyî meseleyên navxweyî ên Amerîkayê, Veto kirina daxwaza felestîniyan dê hezîne û têçûyek zêdetir him bo Amerîka û him jî bo deverê li pey xwe re bîne.

Li serweyî hemûyan şeqar û navberê dixîne nava bilûka rojava. Amerîkayê li hember zorahiya welatên cîhanê û bi taybet raya giştî a welatên îslamî de cih dide ku çareser bûna pirsa Felestînê bi hêviya xwe dizanin. Lewma ew yek pêgeha Amerîka li deverê de lawaz û lêj dike. Herweha dibe sedema zêdebûna tund û tûjiyan li deverê û bi taybetî li navbera her du aliyên pêwendîdar bi vê pirsê ve. Çunku derfet ji bo destêwerdana cîranan û gurûpên tundajo pêk tê. Wate ew karê Amerîkayê dibe sedem ku karta berende bikewe destê rejîmên Îran, Sûriya û rêxistinên terorîstî û tundajoyên îslamî ku durûşmên dijî îsraîlî û durû nîşandana Amerîkayê bûye pêxora teblîxatî a wan.

Hinek ji karnasên siyasî li ser vê bawerê ne ku Amerîka ne tenê dibe Veto'yê bikar nehîne, belkî divê bibe beşek ji zext û givaşên bo ser desthilata îsraîlê bona lihevhatin û rêketinê. Daku bi avabûna dewleta Felestînî û bi fermî nasîna çarçoveya wê li ser bingeha sînorên 1967'ê, pêşiya pêvajoya demokrasiyê deverê de vebe.

Çunku mesleya Felestînê kakila sereke ya gelek ji çalakiyên siyasî ên welatên erebî pêk tîne û ger çareser nebe, dê tesîr û bandorê li ser pêvajoya siyasî a Misir, Tûnis, Lîbî, Sûriye û ... bike ku tûşî pêlên buhara erebî hatine û Îsraîl jî çi din nikare li hember wan pêlan de xemsar be. Tenê wê demê ye ku riya xurtbûn û geşekirina îslama siyasî li nav felestînê de tê daxistin û şikestê dide pîlanên tundajoyan û alîgirên wan weke Komara Îslamî ku tenê bona berjewendî û pêşvebirina siyasetên xwe Felestîn kirine mertalek ji xwe re.

Axaftina nû a Xamineyî li 5'mîn konferansa navnetewî a piştewanî kirin ji Felestînê li Tehranê de jî eyankerê vê rastiyê ye. Xamineyî bi dijberiya eşkere a xwe bi wê daxwaza Mehmûd Ebas re kete eniya Amerîka û Îsraîlê li dijî serxwebûna Felestînê.




## Xalid Meşel dijî helwesta Xamineyî sekinî

**Di demekê de ku Elî Xamineyî li axavtina xwe de dijberiya terhê Mehmud Ebbas di warê serbixweyiya Felestînê de kir, Xalid Meşel helwestek berevajiyê axavtina Xamineyî girt û ew kiryara Mehmud Ebas wek kiryarek cesurane binav kir.**



Xalid Meşel ragehand ku vê kiryara Mehmud Ebbas deskewtek meinewî û sembolîk li pey xwe re hebû, ku em nikarin înkar bikin, kodengiyek baş pêk hatiye, lê nabe em tenê li vê bazneyê de bisekinin.

Wî got ku Mehmud Ebas neçû jêr barê Amerîkayê û bi cesuriyek zaf ve daxwaza serbixweyiyê kir. Divêt em rêz ji vê wêrekiya wî bigrin.

Xamineyî ragehandibû ku ew terh dibe sedema parvebûna xaka filistînê û em vê napejirînin.

# Parlementerên Kurd vegeriyane parlementoyê

A: Rûken

**P**iştî hilbijartina 12'ê Hezîrana 2011'an li Tirkiyê de ku Kurdan karîn 36 kursiyên parlementoyê bidest bixin û ew yek jî li gorî hilbijartinên pêşîn sekevtinek baş bû, lê biryar dan ku di dema sondxwarina yasayî de neçin parlementoyê, heya wê demê ku parlementerê wan ê girtî ji girtîgehê serbest neyê berdan. Eva bû ku wan biryara xwe anî cih û bêy amadebûna nûnerên Kurd parlementerên Turk sonda yasayî xwarin.

Lê piştî derbasbûna çar mehan bi ser hilbijartinê û gellek gotûbêj û civînan, parlementerên Kurd hatin ser vê bawerê ku tevî evê ku daxwaziyên wan nehatin cîbicîkirin jî, lê ew dikarin bi beşdariya li parlemntoyê de, bandorê li ser raya giştî û partiyên siyasî danên û ji bo bi cih kirina mafê Kurdan li yasaya bingehîn de tewaya hêza xwe bi kar bixin.

Li ser vê biryarê di parlmentoyê de beşdar bûn û piştî axivitina Serokomarê Tirkiyê, parlamenterên Kurd ên ser bi Eniya Ked, Azadî û Demokrasiyê sond xwarin. Lê dema Zana sond xwar, li hemberî sondxwarina wê de deng bilind bûn. Mediyayên Turk ragehand dema ku Leyla Zanayê sond xwariye li şûna peyva "Turk Milletî", "Turkiye Milletî" bi kar aniye.

Di vê derberê Leyla Zana bersiva pirsa rojnamegeran da û got "Tiştekî plankirî nîne, min bi zanebûn negotiye. Wisa ji devê min derket". Lê derbarê vê mijarê de Serokê Meclîsê jî daxuyaniyek da û got ku: Leyla Zana li yasayê sond xwariye û piştî îdîakirinan me dengên tomarkirî kontrol kir, lê derket ku Zana sond rast xwendiye. Hêjayî gotinê ye, berî 17 sala (li sala 1994'ê) Leyla Zana bi zimanê Kurdî di Meclîsê de sond xwaribû, lewma ew û çend hevalên xwe hatibûn girtin.

Parlementerên jin ên BDP'yî ku li Meclîsê sond xwarin, beriya li meclîsê sond bixwin li Amedê di konferansa Tevgera Jinan a Azad



û Demokratîk (DOKH) de sond xwaribûn. Di konferansê de parlementerên jin ên BDP'ê **Leyla Zana, Ayla Akat Ata, Perwîn Buldan, Emîne Ayna, Sebahat Tuncel, Gultan Kişanak, Mulkiye Bîrtane, Nursel Aydogan,** endamên Însiyatîfa Dayîkên Aştiyê Şaredarên jin ên herêmê, endamên jin ên Meclîsa Giştî ya Bajaran jî di nav de 200 delege amade bibûn.

Li salona konferansê pankartên "Em têkoşîna zayendî geş bikin, em bigêjin jiyana azad û demokratîk" û "Em bi Xweseriya Demokratîk ber bi yekîtiya demokratîk a dildarî ve bi rê dikevin" daliqandin. Piştî axaftinan, Kişanak sond xwar û hemû jinên parlementer jî sond dubare kirin û piştî vê sondê berê xwe dan Meclîsa Enqereyê û li wir sonda yasayî xwarin.

Sondxwarina wan ya li parlementoyê de ji aliyê gellek ji karnasên siyasî û şarezayên di warê pirsa Kurd ve hate nirxandin û bi germî hate pêşwazîkirin. Jiber ku heke bi beşdariya li parlementoyê de jî parlementerên Kurd nekarin mafê Kurd di yasaya bingehîn de cih bidin jî, aliyê kêm dikarin li parlementoyê de şerê xwe bikin û pirsa Kurd zindî ragirin û li hemberî wan biryaran de ku dijî mafê Kurdan bin, dengê xwe bilind bikin.

Bi vê hêviyê ku ew bi deskevtek baş ji bo gelê Kurd wan çar salan bi dawî bînin û bi piştevaniya gelê xwe welatê xwe roj bi rojê di her warekî de ber bi pêşve bibin û bi mafê rastîn nêzîk û nêzîktir bikin.

Kemal Burkay:

# Min li meclîsê sond nedixwar

**Siyasertvan û serokê berê yê Partiya Sosyalîsta Kurdistanê Kemal Burkay beşdarî programeke televîzyonê bû û li ser sonda di meclîsê de axifî.**

Burkay got, divê ew sond were rakirin ji ber ku nijadperestî têde heye.

Kemal Burkay di televîzyona A Haber de beşdarî programekê bû û diyar kir ku ew kesekî bi prensîb e, ew naçe meclîseke wiha, ji ber ku ewê sondê nexwe.

Rojev

# Gefên Îranê dikare metirsîdar bin

Ji Farsî: Arîn

Hebîbula Seyarî, fermanderê hêza deryayî a Artêşa Komara Îslamî a Îranê çend rojan berî niha ragihandibû ku me pilan heye paporên şer ên xwe bişînin Etlesê li nizîk sînorê avî ên Amerîkayê. Wî dabû zanîn ku çawa Amerîka li ser sînorên avî ên me ye, em jî dê bi awayek bihêz xwe bigehînin sînorên avî ên Amerîkayê. Ew axaftina berpirsê rejîmê dengvedanek zaf li nav medyayan de afirand û Koşka Sipî jî li vê derheqê de daxuyaniyek da.

Li dor vê mijarê rojnameya Los Ancilês Taymz'ê analîzek kiriye ku emê kurtiyek ji wê biweşînin.

**Cîhanê bi gef û gurrên Îranê adet kiriye**

Bêşik Pintagon dizane ku paporên şer ên Îranê li pêşerojek nizîk de nikarin bigihîjne kenarên Amerîkayê. Her wek Cî Kirnî, berdevkê Koşka Sipî ragihand ku : Em wan gotinan bi micidî wernagrin, çunku bi şiyan û karînên deryayî ên Îranê hev nagirin.

Bi vî halî ev avaftinên bêbingeh ên desthilatdarên Îranê, nîşana mijarek dine ku hêl û siyaseta rejîmê li hember tevger û serhildanên xelkî ku seranserê deverê dilerizîne, dide eşkere kirin. Herweha nîşan dide ku bi derbasbûna sê salan bi ser serkomariya Obama de, Îran û Amerîka her li berbirû bûnê de ne.

Îranê nifûz û pêgeha deverî a xwe ji dest daye. Tehranê bi zîrekî ve ji şaşiyên Amerîka li Rojhilata navîn li serdemê Bûş de mifah stand heya ku valahiya hêzê tejî bike û nifûza xwe zêde û balansê biparêze. Neyarên ku tu car Îranê nedikarî wan şikest bide, ji hêla artêşa Amerîkayê ve hatin jinav birin û ketine xizmeta Îranê de.

Siwarbûna li pişt şaşiyên Amerîkayê, Îranê heya wê astê digehîne, ne zêdetir. Lê piştî serkut û tepeseriya hovane a xelkê Îranê li encama hilbijartina nimayişî a serkomariyê li sala 2009'an û herweha rabûn û serhildana xelkê welatên erebî li dijî rejîmên dîktatorî, Tehranê hêla stratejîk a xwe wunda kiriye.

Her çiqas ku Îranê pêşbîniya buhara erebî kiribû û nemaze li rûyekî de piştewanî jê kiribû, lê ji kêmasî û nebûna aliyê dijî Amerîkayî li wan bizav û serhildanan de heyrî maye. Baldan bi vê meselê girînge, jiber ku tu xwast û hêviyeke serhildêrên ereb ji bo betalkirina kerb û kîn û hêrsê bi ser serê Amerîkayê de nine, lewma Îran jî bi zehmetî dikare mifahê ji wan serhildanan bistîne yan sûîstifadê jê bike. Bi taybetî ku dewletên wan, tu hez û hêviyek ji bo avakirina ulgû û berjenga Îranê li welatên xwe de ninin.

Buhara erebî hêza nifûza Îranê li deverê de kêm kiriye. Berevaj nifûza deverî niha li destê Turkiyê de ye û wî welatî jî tu tirsek nine ku mifahê ji hin durûşmên Îranê derheq welatên erebî bistîne.

Dema ku hêza dewletê kêm dibe, bêhêvîtiya wê jî zêdetir dibe. Lewma lehn û daxuyaniyên wan jî tundtir û êrîşkaran dibin û tirs – pêtir ji lêpirsînê- bi ser reftarên wê de zal dibe. Belge û nîşane jî eyankerê wê ne ku Komara Îslamî a Îranê li wuha rewşekê de ye, parek ji ber lawazbûna nifûza deverî û beşa din jî ji ber bêhêzî û lawaziya navxweyî ye piştî binav hilbijartina sala 2009'an.

Her çiqas ku cihê pêkenînê ye em wusa bifikirin ku ewlehî û tenahiya Amerîkayê ji ber bûna hêza deryayî a Îranê dikewe xeterî û tehlûkeyê, lê hêj egera ber bi rûbûna Îran û Amerîkayê ji nav neçûye. Li rastî de sê heger hene ku bûye sedem fermanderê artêşa Amerîkayê rabigehîne ku ber bi rû bûna ji nişkîve bi Îranê re dikare ji kuntirolê derkewe. Yekem ji ber vê ku lawazbûna nifûza Amerîkayê li deverê de bûye sedema pêkhatina valahiyekê ku divêt bi awayekê were tejî kirin. Lê tejî kirina vê valahiyê renge ber bi girjî û aloziyên deverî ve biçe.

Duyem, aloziyên han li rewşekê de diqewimin ku zorahiya dewletên deverê bi lawazî û bêhêziyên navxweyî ber bi rû ne. Bi vî awayî jî mirov nikare şiyana rêberîkirina siyasetek deverî a karîger û bibandor ji wan hebe. Çunku biryarên stratejîk, niha pitir li ser esas û bingeha rewşa hundirî û navxweyî tên girtin heya berhevdanên jeopolotîkî.

Sêyem, eva ku bêhêziyek han demekê metirsîdar dibe ku aliyên dijberî hev bi hevre li guftigoyan de nebin. Ev yeka bûye sedema hella û dengedenga zaf ku li cihê xwe de xeter e û tenê pirûşkek dixwaze ku agirê wê gurtir bibe.

Artêşa Amerîkayê jî nîgeranê vê yekê ye. Admîral Mayk Molên ragihandiye ku: Me pêwendî bi Îranê re tunînin, li encam de em ji hevdu tê nagihîjin. Ger tiştek rû bide, bê şik em nikarin kuntirol bikin.

# 5'ê Octoberê û awirek ji rewşa mamostayan





Ceifer Mubeşirniya

Yek ji pirsên herî girîng ku cudahî tev hemû pirsên civakê heye û pêwîstî bi avirek taybetî ji aliyê desthilatê ve heye, pirsa perwerde û hînkirinê ye. Lewma di hemû welatan de, mijara perwerde û hînkirinê di bazneya desthilatê de wezaretek taybetî bi xwe veqetanfiye. Wate Wezareta Perwerde û Hînkirinê pêwîstiyek mirovî ye. cudahiya vê wezaretê jî di hestyarbûna wê de ye, anku liv û riftar bi hesastirîn qata civakê, wate zarok ku bingeh û pêşeroja welat in, li stûyê wan de ye.

Ku waye, her desthilatek ku zanabûna xelkê bi lêjbûna pêgeha xwe nezane û xemxorên xelkê û welatê xwe be, li hember vê meseleya girîng di her rewşek siyasî, ewlehî û abûriya welat de, li hember daxwaziyên xelkê di pêxema perwerdeyek bêtir de stûxwar e û amadeyî her xizmetekê dibin.

Di vê navberê de serekîtirîn rol, rolê mamostayan e. Di hemû cîhanê de mamosta qata herî dilsoj û zehmetk a civakê tên zanîn. Ji aliyek din ve jî mamosta texek saxlem û paqij e ku bi awayek zanistî û berbiçav erkên xwe bi cih tînin.

Dema ku sereketirîn û mezintirîn xwasta mamostayan ji desthilatê girîngîpêdanek pêtir bi sîstema perwerde û hînkirinê be daku pêşerojek geş bo civakê bi armanc, û bike diyarî, bêşik bi vê nêrînê mamosta bi çavkaniya zanist û geşekirina civakê tên hesibandin. Lewma hewce ye ku tu car îzin nehê dayîn ev çavkaniya heyatî a civakê di pêvajoya pirsgirêkên birêveberiya welate de şêlû bibe.

Bi vê armancê di asta navnetewî de bi awayek fermî ji bo ku rêz ji mamostayan bihê girtin û civaka mirovahiyê bi giştî buhayan keda mamostayan bizane, roja 5'ê Çiriya Pêşîn ji aliyê saziya "NY" ve weke roja mamostayan hatiye diyarîkirin. Ew roj tevî vê ku roja rêzgirtin ji mamostayan e, di heman dem de jî qadek valatir û bi cihtir e bo mamostayan da ku xwastên xwe bixin ber raya giştî a berpirs û birêveberên perwerde û hînkirinê.

Mixabin di welatên ne demokratîk de ku desthilatdarên wan welatan li ser nirxandina girîngînedan bi perwerde, zanist û hişyariya xelkê desthilat ji xwe re pawan kirine, ev roj weke rojek xweşî, rêzgirtin ji ked û têkoşîna wan û hêvî, moral û enerjîdan bi mamostayan nehatiye naskirin, lewma mamostayan jî renge hest bi pêgeha rastîn û berpirsatiya xwe di civakê de nekirine. Mixabin tenê daxwazên çendîn sale, xweziyên pengurî li dor perwerdeyek baştir, û bi giştî belengaziya mamostayan di vê rojê de dixuye. Kêmasiyên ku encama pênezanîn û xemsariya sîstemên siyasî ye derheq mamostayan.

Îran jî yek ji wan welatên nedemokrat e ku paremayîtirîn sîstema siyasî, îdareya wê dike. Sîstema perwerde û hînkirinê di vî welatî de bergirtî ji sîstema siyasî a desthilatdar e, çimku di sîstemek berteng de îzna tu birêveberiyek li dervey hêla hizrîna rayedarên dewletî de nahê dayîn.

Kartêkeriya nerênî a xemsarî yan bertengkirina armancdar a desthilatdaran, li ser sîstema perwerdê li rûçikê civakê de dixuye. Bo mînak, di rapora ku saziya "NY" ji sala 1990'î ve her sal li ser geşekirina mirovî a welatan belav dike de, Îran jî rêzbenda 99'a welatên cîhanê de jortir neçûye. Ev rapore ku berçavtirîn hevoka wê "mirov sermiyana rastîn a her welatekê ne" geşekirina welatan di sê hêlên "saxlemî", "îlm û zanist" û rewşa abûrî de berhev dibe, ku ger mirov ji binêşeya wan sê sitûnên herî girîng ên welatekê vekole, digîje sîstema perwerdeya wî welatî, bi atybetî qutabxane û zanîngehan.

Di vê berhevdanê de ger mirov ji civaka Îranê di rêzbenda 99'an û civaka Norwêjê di rêzbenda 1'an de bifikire û di hemû warekê de bide berhev, vê demê ye ku mirov bi başî û bi hûrî diçe nava hizra bandora sîstema perwerdeyê de û derdikeve ku girîngîdan bi mamostayan û guhgirtin ji xwastên wan e ku armanc civakek şibî Norwêjê yan her welatek din ên di rêzbenda 10 welatên yekemîn de ne pêk tîne.

Encama vê guhnedan û xemsariya rayedarên Wezareta Perwerde û Hînkirinê di Îranê de, li gor çavkaniyên dewleta Îranê bixwe, 19 milyon kes di navbera 7 heya 19 saliyê de ku hewce ye di qutabxaneyan de bihên perwerandin û ji hînbûnê berdewam bin, 7 milyon û 135 hezar kes bi sedemên cur bi cur ji domandina xwendinê veqetiyane. Di rastî de 37 ji sedî a qutabiyên Îranê neçar bi devberdan ji xwendinê bûne.

Ji aliyek din ve jî jiyana mamostayan her wa li jêr hêla hejariyê de ye, û encama vê jiyana nebaş a mamostayan jî li gor vekolînên zanistî û pêdagiriya mamostayan bixwe, kar ji asta çawanî "kêyfiyet"a xwendin û perwerdeyê kiriye û weke serekîtirîn sedemên nerênî di daketina rewşa xwendinê de hatine zanîn.

Mixabin, 5'ê Çiriya Pêşîn a îsal jî weke hemû rojên dîrokî ên ku di cîhanê de pêgehek bilind hene, ji mamostayên Îranê re roja bi dilgirtina xem û kederek din e û bi vê rêveberiyê û vê sîstema desthilatdariyê, civaka Îranê roj bi roj ji cîhana pêşverû pare dimîne.

## Melayê hikûmetî: Nîqaş û pêkenînên jin û mêran bihevre heram e



Ebulhesen Newab, berpirsê zanîngeha Ol û Meseb a bajarê Qumê dibêje: Jin û mêr nabe ku pêwendiyên dostane hebin û diviya ji nîqaş û pêkenînên bi hevre xwe biparêzin.

wî daye zanîn ku jin û mêr diviya tenê bo mijarên micid bi hevre axavtinan bikin û pêwendiyên dostane û pêkenîn heram e û nîqaşên jin û mêr dibe sedema pirsgirêkên malbatî bo malbatên her du aliyan. Herweha navbirî got ku di cihê kar, jin û mêrên hevkar tenê divêt di çarçoveya kar û barên xwe de bi hevre biaxivin û derketin ji vê çarçoveyê heram e.

# Paşayê Erebistanê û biryarek dîrokî li dor jinan





Arif Velezî

Em di Sedsalekê de dijîn ku cîhan bi siya pêşketina îlm û zaniyariyan bûye gundek biçûk. Her ku diçe buha û nirxên mirovî pêgeha xwe bidest dixin û yeksanî, maf û kerameta mirovî serdest dibin. Êdî ciyawaziyên regezî niha li welatên pêşketî de bi awayek berbiçav kêmreng bûne. Lê mixabin di gelek welatên îslamî bi giştî û Rojhilata Navîn bi taybetî, hêj sîstemên dîkatorî û kewneperestane li ser kar in û bûne asteng li hemberî serdestiya mirov.

Hakimên desthilatdar yasa û rêsayên welat li ser bingeha ol, lê li rastî de gorî berjewendî û desthilatên xwe dadirêjin û xelkê ji mafên rewa û siroştî ên xwe bêpar dihêlin. Jin jî ku li van civakan de bi mirovên pile du tên nasîn, rastî gelek bêmafî, azar û sivikatiyan dibin. Ew pêgeha pîroz û bilind jî jê hatiye standin û ne tenê rol û şiyana wê li pêşvebirin û geşandina civakê de hatiye jibîr kirin, belkî riya her terze beşdariyek li kar û barên siyasî, civakî û aborî de jê hatiye asteng kirin û tenê di çarçoveya malbatê û xwedî kirina zarokan û û kolebûna li destê mêran de hatiye hiştin.

Erebista Seudî ku xwe bi landika şaristaniyeta îsalmê û dayîka cîhana îslam dizane yek ji wan e. Mirov bi giştî û Jin bi taybetî ji gelek mafên xwe ên xwezayî hatine bêpar kirin. Gelek mafên destpêkî weke ajotvanî, mafê dengdan û beşdarî kirina li birêveberiyê ji jinê hatine dagîr kirin.

Ji ber ku sîstema siyasî a Erebistanê bi şêwazekî hatiye darêtin ku di bin bandora Îslam û babetên olî de ye û tu bunyadên siyasî ên rewa û berheq nekarîne bên damezirandin, lewma nikare tu reforman di nav xwe de pêk bîne.

Lê pêlên wan guhertinên li Rojhilata Navîn û welatên Erebî de bûye sedem ku her yek ji wan bi neçarî bi xwe û yasayên xwe de biçin, nexa li hemberî vê bahozê û hejmoniya wê de parastî namînin. Ew bahoz gefek micid jî ji erebistanê dixwe û jinên wir jî gihîştine vê asta hişyariyê ku bikarin berevaniyê ji mafên xwe bikin. Her eva bû ku jinek binavê Menaf Şerîf bi nîşaneya nerazîbûna li hember yasaya wî welatî de dibe sembola nerazîbûn û berxwedaniyê û herweha bibe sedema pêkhatina tevgerên jinan ji rêya facebookê de.

Eva bû ku me dît Paşayê Erebistanê li çend rojên derbasbûyî de bi neçarî û li bin siya wê bahoza dijî dîktatorî de biryarek da ku li dîroka wî welatî de bêmînak e. Ew jî dana mafê dengdan û beşdarîkirin li berpirsatiyan de bû.

Biryarek wiha li demekê de ye ku jin ji hemû mafên xwe bêbeş in û nemaze bi tenê nikarin ji malê derkewin yan biçin seferê, lewma ew li cihê xwe de şoreşek e. Eve jî li halekê de ye ku civaka medenî û sivîl hêdê hêdî li wir şekil digre û torên civakî û înternêt roj li pey rojê xurttir dibin. Her ev civaka medenî ye ku givaşan tîne ser hikûmeta sunetî a Erebistanê û desthilat neçar kir ku biryarek wiha bide.

Hikûmeta Melik Ebdula û dîktatorên din ku buhagiraniyên mirovî naparêzin, deshilata nerewa ya malbatî, tayîfî û eşîrî a xwe bi ser zorîneya xelkê de sepandine, ketine ber tîrojkên wan guhertinan û neçar mane ku hin reform û çaksaziyan pilan bikin, bi taybetî derheq jinan. Wî ragehand ku du kesatiyên navdar yên mesebî di kabîna xwe de der dixe û herwiha posta cihgirê Wezîrê Perwede û Fêrkirinê di warê kar û barên jinan de dide xatûna Nûre Elfêyz. Ku eva jî cara yekem e di hikûmeta Melik Ebdula de postek wiha mezin bi jinekê tê sipartin.

Melik Ebdula herwusa seba rexneyên zaf ku ji polîsê mesebî û dozgerî a welat dihatin girtin, neçar ma ku serokpolîs û serdozgerê herî navdar yê Erebistanê li ser kar avêt.

Ew dixwaze nifûza Îslamiyên tundrew ku heyamê çend dehsalan e bandor xistine ser binyadên olî û mesebî heya qasekê kêm bike. Wî li doma wan reforman de ragihand ku sarokatiya çar Wezaretan jî dê biguherîne. Herweha hukmê cezaya li ser jina ajotvan jî hilgirt.

Bi giştî ev reformên biçûk û vegerandina mafên xwezayî û zewtkirî ên jinan bo wan, pêngavek girîng û binirx e di rastaya rêzgirtin ji keramet û buhayên mirovî, herweha pêşxistina civakê.

Bê şik ew dibin hêvênê hêz û enerjiyek zêdetir ji bo xelkê Erebistanê û bi taybetî jinan bona pêdagirî kirin li ser xebat û berxwedana xwe bona bidest xistina xwast û daxwazên xwe. Bê şik dibe îrade û moralek zêdetir ji bo xebat û berxwedanî li hember rakirina tîtalên kevn û sunetî, ku dibin destpêk û rêxweşkerek bo guhertinên bingehîn di civaka Erebistanê de.

## Zirara salaneya helatina mejiyan ji Îranê

15 heya 30 milyard dolar e



Revîna mirovên pispor(mejî) ji cehenema Îranê, salane 15 heya 30 milyard dolar xisara abûrî dide wî welatî.

Bi sedema kiryarên şaş ên rejîma Îranê di warê aborî de û liberçavnegirtina hêzên pispor di wî welatî de û tunebûna derfetên karî bo wan, gellek pisporên Îranî neçarin ku Îranê bi cih bihêlin.

Dîsan sozek direw;

## ev car bo bîmeya jinên malan

Zêdetir ji 8 salan e rejîma Îranê soz daye ku Bîmeya Taybetî bo jinên malan dabîn bike, lê di progiramên aborî ên dewletî de, bûdceya hewce bo vî karî nehatiye dabînkirin.

Hêjayî gotinê ye ku di Îranê de 18 milyon jinên maldar hene ku bê bîmê ne.



# Rewşa xirab a Îranê di warê seneta tûrîzmê



Sadiq Vehdanî

Hevdem li gel nêzîkbûn bi 27'ê Îlonê, roja cîhanî a Tûrîzmê, civata Abûrî a cîhanî, di raporek taybetî derheq Tûrîzmê de, dahatên welatên cîhanê ji seneta Tûrîzmê ragihand, ku di vê raporê de, Îran di pileya 114'mîn welatê cîhanê cih girtiye, herweha di herêmê Rojhilata Navîn de jî, Îran kêmtirîn dahat li çav welatên cînar ên xwe hebûye.

Eve di halekê de ye ku li gor zaniyariyên saziya navnetewî a Tûrîzmê(UNWTO), Îran di warê hebûna berçaviyên balkêş û tûrîstî ên dîrokî, 10'mîn welatê cîhanê ye û herweha hebûna keş û hewa û diyardeyên jioformolojî ên cur bi cur di Îranê de, ew welat di pileya pêncemîn welatê balkêş ê cîhanê di warê ekotûrîzm(tebîet gerdî), cih girtiye.

Îran sermayeyek sereke ku hemen cihwar balkêş ên tûrîstî ne, bo rakişandina tûrîstî bo welatê xwe heye, lê faktorên din jî xincî cihên balkêşên tûrîstî hewce ne.

Tûrîzm weke senetek pirrdahat di cîhanê de hatiye nasîn. Dahatên hat û çûn, hezîneyên hotel û manê, dahatên xwarin û vexwarinê, dahatên ku bazara her welatek ji tûrîstan bi dest dixe û li pey wan peydabûna kar bo welatiyên welatê tûrîstî bûye sedem ku seneta tûrîzmê pirrdahattirîn seneta cîhanê bihê hesibandin û welatên cîhanê hewl didin ku bi her awayekê ji vê senetê bo qazancên abûrî ên xwe mifahê bistînin.

Welatên cînar ên Îranê weke Turkiyê, Îmaratên Erebî, heta welatên weke Ermenistanê jî di vî warî de serkevtî bûne. Hêjayî gotinê ye ku cihwarên balkêş ên tûrîstî di wan welatan li çav Îranê di astekê gellek xwartir de ne, lê me amaje pê kir ku faktorên din jî bo pêşxistina seneta tûrîzmê hewce ne.






Navinciya dahata salane a welatê Turkiyê ji tûrîzmê zêdetir ji 20 milyard dolaran e, lê para Îranê kêmtir ji 700 milyon dolarî e. Ew welat bi faktorên din jî xincî hebûna cihwarên tûrîstî, girîngiyê didin, faktorên ku dijayetî li gel îdeolojiya rejîma Îranê hene.

Hemû siyaset û kiryarên karbidestin rejîma Îranê li gor îdeolojiya hişk a îslamî tên darêtin, di vê rewşê de utomatîk azadiyên civakî jî tên qutkirin û li pey wan yasayên dogm jî tên danîn.

Felsefeya tûrîzm çijdêtin e û tefrîh e, tefrîhek ku bi bê azadiyên civakî berhev nabe. Tunebûna wan azadiyan jî astengiyek mezin e bo tûrîstan.

Her tûrîstek jî ger bixwaze bo welatê Îranê sefer bike, neçar e ku yasayên îdelojîkî ên wî welatî birêve bibe. Bo mînak tûrîstek jin neçar e ku bo geriyan li Îranê, kincên Îslamî lixwe bike, heta ger misilman jî nebe. Bêguman ew yasa û riftarên hikûmeta Îranê ji tûrîstên ne misilman û alîgerên azadiyên civakî re nayê qebûlkirin, ku wusan e tu car azadiya xwe goriyê sefer bo Îranê nakin.

Yek ji faktorên herî girîng bo pêşxistina seneta tûrîzmê, hebûna tenahî û hest bi ewlehîkirin di her welatekê de ye.

Welatê Îranê di nav raya giştî a cîhanê weke welatek terorîst û ne ewle hatiye naskirin.

Herweha di warê xizmetguzarî bo tûrîstan jî Îran di rewşekê ne baş de ye. Xizmetguzariyên weke, hotel û sirwîsên wan, rewşa cadeyên Îranê, xizmetguzarî di cihên ku cihwarên tûrîstî di wir in, gellek tiştên din ku mîna hemû xizmetguzariyên abûrî ên rejîmê wêran e.

Karbidestên rejîmê bas ji progiramên xwe bo pêşxistina seneta Tûrîzmê dikin, lê eva mahiyet û naveroka rejîm bixwe ye ku astengiyan di vî warî de çê dike û welatê Îran di rewşa niha a xwe de qet hilgirî rakişandina tûrîstan bo aliyê xwe nine.

## Mezintirîn cihwarên dîrokî ên parêzgeha Îlamê di metirsiya ji navçûnê de ne

**Berhem û şûnwarên dîrokî ên bajarên "Derrêşehr" û bajarokê "Seymere" li parêzgeha Îlamê bûne mezintirîn astengî bo xwedî milk û alîgirên şûnwarên dîrokî ku di metirsiya ji navçûnê de ne.**

Li gor nûçegihaniya şûnwarên Çandî "CHN" seba kêlan û çandiniyek zaf a zewiyên vê deverê ji aliyê werzêran ve, û herweha pirojeyên çêkirina bînayan bi awayek neyasayî, bûne mezintirîn gefa ji navçûna şûnwarên dîrokî ên bajar ê"Derrêşehr" yê parêzgeha Îlamê.

Karnasên şûnwarên dîrokî ên Îlamê dibêjin, heya niha me bi dijwarî ew şûnwarên dîrokî ên "Derrêşehr"ê parastine û karên destpêkî bo tomarkirina wan şûnwarên di rîzbenda şûnwarên cîhanî de di halê darêtinê de ne.

şûnwarnasekî vê herêmê dibêje: Xemsarî û lawaziya beşa maf a saziya şûnwarên dîrokî ji astengiyên herî mezin ên li ser riya karkirinê ne.

şûnwarên dîrokî ên Seymereya ser bi Derrêşehrê bi rûberê pitir ji 200 donim ku di dawiya gerra Sasaniyan de hatine avakirin, di sala 1931'an de bi hejmara "6" di lîsteya şûnwarên millî ên Îranê de hatine tomarkirin.

Parêzgeha Îlamê yek ji wan deverên Rojhilata Kurdistanê ye ku dever û şûnwarên kevnar û dîrokî ên bi nirx tê de hene û yek ji cihên bajarvaniya kevin a mirovan e. Lê xemsarî û guhnedan ji aliyê navnedên pêwendîdar ên rejîma Komara Îslamî ve, cih û warên han xesarên mezin dîtine û ev xesar gefek micid in li ser jinavçûna wan şûnwarên.



## Pirtûkek din a Kurmancî li Xurasanê
### bi pirtûkxaneya Kurdî zêde bû

**Pirtûka helbestan a bi navê "Esmanê Bê Sînor" di qalibê sêxiştekî, ji nivîsandina helbestvanê Kurd yê Xurasanê, Îsmaîl Husênpûr, bi devoka Kurmanciya Jorîn çap û belav bû.**

Pirtûka han di sê hezar nusxeyan de ji aliyê çapxaneya "Cîhan" hatiye çap û belavkirin.

Ev pirtûka bi navê "Esmanê Bê Sînor", ji 100 sêxiştekiayn pêk hatiye ku mijarên vê hilgirê cangorîtî, nîştimanperwerî, siroşthezî, xurbet û hêviyê ne.

Pêşîneya qalibê helbestên sêxiştekî ku pitir ji wêjeya devokî ve nêzîk e û di nava qata gundakincî de berhev dibe, vedigere bo çaxê berî îslamê û herweha qalibên Hayko ên îroyîne "Japûnê", û wek nêzîktirîn qalibên sitranên helbestên sêxiştekî tê zanîn.

Helbestvanê Kurd yê Xurasanê Îsmaîl Husênpûr, ji wan Kurdan e ku di serdemê Nadirşah yê Îranê de ji herêma Bakûrê Kurdistana Îranê ve bo parêzgeha Xurasanê a Bakûrê Rojhilata Îranê seba berxwedaniya netewî hatin dûrxistin. Îsmaîl Husênpûr li sala 1971'an de li bajarê "Şîrwan" yê ser bi



herêma Xurasana Bakûr ji dayîk bûye.

Navbirî karnasê bilin yê ziman û wêjeya Farsî û endamê şêvra bajarê Şîrwanê ye.

Di heyamê 10 salên derbasbûyî de, pêlek berfireh a çand û wêjeyê di nava Kurdên Xurasanê de dest pêkiriye û heya niha di warê fulkolûr, mûzîk, helbest û çîrokan bi awayek berbiçav pirtûk ji aliyê wan Kurdan ve hatine çap û belavkirin.

Eva jî derxerê vê yekê ye ku piştî çendîn sedsalan dûr ji nîştiman, netewe û zimanê xwe, wan Kurdan çand, edet û tîtal bi taybetî zimanê xwe û hesta netewî a xwe wunda nekirine.

## 10'mîn festîvala şanoya Kurdî li
### Seqizê tê lidar xistin



**Bîroya Navenda Hunerî a Şanoyên Kurdî bi derkirina gaziyekê, agehdarî da ku di meha çiriya Paşîn a îsal de, 10'mîn festîvala şanoya Kurdî li Seqizê birêve dibe.**

Li gor gaziya navneda 10'mîn festîvala şanoya Kurdî, festîvala han di du beşên "nivîsandina şanonameyan û diramayî" de dihê lidar xistin.

Mijar û naveroka sereke ên festîvalê pirsên civakî, exlaqî û fulkolûr dibin ku arasteyek afirandin û nûxwaziyê hene, çanda deverî û herweha nêrînek nû bo kultûra giştî a civakê, edet û tîtal û xesarnasiya civakî beşek din a naveroka festîvalê dibe.

Dawîn derfeta wergirtina berhemên hunerî, 12'ê meha Çiriya Pêşîn hatiye diyarîkirin.

Şanoyên serkevtî ên vê festîvalê, îzna beşfarî di festîvalên navnetewî ên Fecr de werdigrin.

10'mîn festîvala şanoyên Kurdî li Seqizê, di berwar 21' heya 24'ê meha Çiriya Paşîn a 2011'an birêve diçe.

## Yekemîn ahenga ku bandorê li ser
### rih û derûna mirovan çêdike, "Nav" e

**Navê mirovan sereketirîn hevalê mirovan e, lewma hestkirin bi vê yekê ji aliyê xelkê Kurdistanê ve di hilbijartina navên xweş bi zimanê şirînê Kurdî weke şanaziyek mezin tê nirxandin. Lê pirraniya caran ji aliyê kotika navnivîsandinê a Komara Îslamî ve, ew mafê mirovî ji Kurdan tê zewtkirin.**

Civaknas di vê bawerê de ne ku di dirêjahiya temenê mirovan de li ser çawaniya form û şekilgirtina kesayetiya tak û civakîbûna kesan, nav girîngtirîn bandor heye, çimku yekemîn aheng e ku bandorê dike ser rih û derûna mirovan.

Lê di heyamê sê dehikên derbasbûyî de, di deverên Kurdistana Îranê de pirraniya caran ji aliyê kotika navnivîsandinê a Komara Îslamî a Îranê ve, ew mafê mirovî ji dayîk û bavan tê sitandin û pêşgirî ji diyarîkirina hin navan weke "Agirî, Şoreş, Xebat, Komar, Êrîş, Pêşewa û ..." hatiye kirin û ji zaf



malbatan re pirsgirêkên derûnî çêkirine.

Li gor malpera Îrna, malpera fermî a Komara Îslamî a Îranê, di hin deverên Kurdistanê de sala derbasbûyî, di nava keçan de 375 kes bi navê "Hestî", 268 kes "Evîn", 244 kes Şinya û 244kes "Niyan" weke navên nû hatine tomarkirin.

## BİKENE KEÇA ME



*Mehmet Çobanoglu*

Tu kenekî dikenî
Caran tehl caran şêrîn
Ser wan lêvên şorax
de
Kam lê tune dîsa jî
Hemû dilan şa dikî
hêşîn dikî
Tirêjên ber çavên te
Ronahî vedidin
Dibin roja ronahî ro
didin bo gelên me
Nav zevîyên tavê de
Wek gulan û kulilkan
Roj bi roj pir geş dibin
û xweş dibin
Ser dêmên te de xal
xalin
Lê bedewê lê şêrînê
Dilê te de welatê me
Axîneke kûr ji lê tê
Xem û xeyalên me nav
de
A niha ji tu bêfirşî
Kurdîstana me
daxwazî
Ew diyarê me Kurdan
e
Wergehê bav û kalane
Wek çavê te pir zelale
Bo gelên me tim jîyane
Bixwaze keça Kurdan
î
Tu Havin'î tu Berfîn'î
Berivan'a gelê me
Xweza'î ya me
Kurdan'î
Keça me keça Kurdan
Kenê te jî bilind bûn
heta ser asîmanan
Bikene têr bikene
xwîşka me xweş
bikene

Her dem jî şeng û şaî
bi her rengî bikene
Qulbike şevên tarî
berbanga me geş bike
Roj hilat war hat
xuyan
Gul, kulîlkên me jî sor
bûn
Bikene têr bikene
bêfedî bikene
Kurdîstan'a me şên
bû

Gul bi gul palepal
gulan vedan
Stêrkan xemilîn şeva
me
Roj hilat ket axa me
Berbanga me
heşyarbû
Navde rengê kesk,
sor,zer
Bikene xwîşka me û
keça me
Rizgarî pêl û pêl
diherike li bo me
Jiyane me jî xweş bû
Bikene têr bikene
bêfedî bikene
Tu Havin'î tu Berfîn'î
Berivan'a gelê me
Xweza'î ya me
Kurdan'î
Dozvanê gelê me yî
Keça Kurdan dil
Kurdîstan

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye
Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com

Wezîrê parastina Amerîkayê:

## Buhara Erebî dibe sedema îzoletirbûna Îsraîlê

**Amerîka daxwaz ji Îsraîlê kir ku pêwendiyên xwe çêtir bike**



Wezîrê Parastinê ê Amerîkayê daxwaz ji Îsraîlê kir ku pêwendiyên xwe bi Turkiye û Mîsrê re baştir bike.

Wezîrê Parastinê ragehand ku li gorî wan guherînên ku di welatên Erebî de rû dane baştir ev e ku Îsraîl jî guhartinan di siyaseta xwe a derekî de pêk bîne.

Liun Paneta, Wezîrê Parastina Amerîkayê ku bona seferek çend rojî û hevdîtina bi berpirsyarên hinek ji welatên li Rojhelata Navîn de rû ji herêmê kiribû, rû li Îsraîlê kir û got ku ew siyaseta derekî ya ku heya niha Îsraîlê girtiye pêş, bê guman vê Îsraîlê di warê pêwendiyan de lawaz bike. Wî ragehand ku Mîsr û welatên din li derbazbûyî de nîşan dane ku dostên baş û cihê baweriyê ji bo Îsraîlê ne, nabe ji dest biçin. Navbirî di vê gera xwe de bi berpirsyarên Îsraîl û Felestînê re hevdîtin pêk anî û piştre bona beşdariya di civîna Natoyê de çû Brokselê.

## Nirxa trumbîla yek ji axazadeyan şeş milyard tûmen e

**Li wan rojên dawiyê de şeqamên bajarê Tehranê şahidê derbazbûna trumbîla yek ji axazadeyan bi buhayê şeş milyard tûmenî bûne.**



Ew trumbêla bi navê “Bogatî Vîron” trumbêla herî giranbuha ya cîhanê ye Motora wê 16 sîlendir, hêza wê 1001 “esb boxar” e, û bileziya zêdetir ji 400 Km di demjimêrekê de ye, û tu kamêrayeke trafîklaytê nikare wêneya wê trumbêlê tomar bike. Wate tenê bi lezatiya balafirê re tê berhevdan.

Bilezî û şitaba vê trumbêlê bi qasekî ye ku mirov dixe bîra trumbîlên di fîlma bi navê “Bitmen”.

niha berpirsiyarên rejîmê divê bersivê bidin ku çawa hiştina ew tirumbîl derbasî Îranê bibe. Paşan çawa jêre pilak kirine? Ya herî girîng, ew pere li ku anîne?

## Rejîm: Em di warê îmamzade û mezargehan de pêşeng in

**Berpirsyarê Ewqaf û karûbarên Xêratê got ku bi hebûna 10 hezar mezargeh, 500 îmamzade, û 33 pêxemberan li ranê de, em bûne pêşeng û qutba îmamzadeyan li cîhanê de.**



Rizayar, berpirsyarê Ewqaf û karûbarên Xêratê ragehand ku îmamzade û pêxember li 8 hezar mezargehan de hatine binaxkirin.

Wî berpirsyarê tevî îşarekirina bi vê ku xelkê Îranê rêz û hurmetê ji pêxemberan digrin, ragihandiye ku salê 140 milyon ziyaretker serdana 8 hezar ziyaretgehan dikin.

Eva jî çavkaniyek din a dahatê ye bo berpirsiyaran.

## Zanîngeha taybet bi axazadeyan; her tirmê 30 milyon tûmen

**Endamekî Komîsyona perwerdehiya Parlementoya Îranê ragehand ku li hin zanîngehên azad de xercê xwendinê gellek giran e**



Elîreza Selîmî, Endamê Komîsyona perwerdehiya Parlementoya Îranê ragehand ku li hinek ji herêmên wek Qişm û Kîşê de, hin zanîngeh hene ku ji xwendekarên xwe her tirmê 25 heya 30 milyonî werdigrin.

Navbirî herweha zêde kir ku zanîngehên li herêmên azad de 13 heya 14 milyonî wek şehriye ji xwendekaran distînin û 13 heya 14 milyonê din jî ji bo îmkanatên rehetî, xizmetkariyan û programên din xerc dikin.

Bi baldan bi vê rewşê li gorî gotina wî berpirsê paye bilind, her xwendekarek ku bixwaze bixwîne û medrekê bistîne divêt 200 milyon tumenî xerc bike.

Ew xwendekarane ku li navenda parêzgehan de akincî ne, her heftiyê 150 hezarî bo hatin û çûna ji riya esmanî xerc dikin. Eva jî li hêlekê de ye ku gelek xwendekar bo hezîneyek 200 hezar tûmenî ji xwendinê bêpar mane.

## Vebirên xelata Nobelê(Şîmî, Fîzîk, Pizişkî) hatin diyarîkirin



Akadimiya seltenetî a Ilûmê li Swêdê ragihand ku Daniyêl Şêxtmen, zanayê Îsraîlî bûye vebirê xelata Nobela Şîmî. Herweha xelata Nobela Fîzîkê jî bi awayek hevbeş bi du zanayên Amerîkayî, (Saol Pîrlmutêr û Adam Rayz) û zanayê Ustiraliyayî (Birayan Işmît) hat bexşîn. Brus Butler, Jul Hufman, û aRalf Îstaynmên sê zana ji Amerîka, Feranse û Kanada bi awayê hevbeş xelata Nobêla Pizişkî ya sala 2011'an bi egera lêkolînên di warê çalak kirina dezgeha ewlehiya laşê mirovan wergirtin.

Bo Nobela Aştiyê jî şansê çend kesayetiyên Ereb ên kariger li ser serhildanên Buhara Erebî ji hemûyan zêdetir e. Di nav wan de Mihemed Sidîq Kebûdvend, serokê rêxistana Mafê Mirova Kurdistana Îranê heye.



xamineyî: faylên diziya hev eskere nekin bi qazanca me nine